

Daxûyaniya Komîteya Navendî ya Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê derheq bidawîhatina 12.mîn pilînoma vê partiyê

»»»» R:6




**Mistefa Hicrî: Ciwanên xwedîhest û serkutkirî ên Rojhilata Kurdistanê! Di sala nû de tevlî refên pêşmergeyên Demokrat bin...**



»»»» R:3

*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*

*www.agirimedia.org Hejmar (274) 19-03-2016 Buha (500) Tûmen*

**Newroz cejna neteweya Kurd li we hemiyan pîroz be**

**Em hatina newrozê cejna neteweyî ya Kurdan û sala nû li hemû hemwelatiyên birûmet û neteweya belengaz a Kurd ku dixwazin ji destê zulm û zordarî û dîktatoriyê rizgar bibin pîroz dikin, û saleke tejî ji cejn û xweşî û serkevtin ji bo hemî Kurdistaniyan bi hêvî dixwazin. Em hêvî dikin ku sala nû ji bo neteweya Kurd sala bidestveanîna deskevtên neteweyî û buhagiran be.**

**Newroza we pîroz, û jiyan li gor dilê we be**
**Komîsyona Ragehandin û Teblîxatê a PDKÎ**

# NEWROZ Cejna vejînê, û destpêka Xebateke nû

**Rêûresma Newrozê, û ji nû ve hatina serê salê, ji aliyê Hizba Demokrata Kurdistana Îranê ve li ser sînorên di navbera Rojhilat û Başûrê Kurdistanê bilind hate ragirtin.**

Li gorî rapora gehiştî destê Kurdistanmedia, roja Înê 18'ê Adara 2016'an, rêûresma Newrozê li ser sînorên di navbera Kurdistana Rojhilat û Kurdistana Başûr bi pişikdariya Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê Hizba Demokrata Kurdistana Îranê, û herweha endamên rêberî, kadr û pêşmerge û malbatên Hizba Demokrata Kurdistanê û hejmarek mêhvanan, li baregehên "Hêza Taybet" bi coşeke mezin ve hate pîrozkirin.Rêûresmê bi sirûda netewî ya "Ey Reqîb" û ragirtina deqeyekê bêdengî bona rêzgirtin ji canê paqij ên şehîdên Kurd û Kurdistanê dest bi karê xwe kir, û piştre Rostem Cehangîrî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ û berpirsê Komîsyona Siyasî Nizamî, bixêrhatina Mêhvan û pişikdaran kir.

Di beşa din a rêûresmê de Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê Hizba Demokrata Kurdistana Îranê peyama pîrozbahiya Newrozê pêşkêşî pişikdaran kir. Hicrî di peyama xwe de, serbarê vê ku pîrozbahiyên xwe pêşkêşî hemû pişikdaran, malbatên şehîdan û girtiyên siyasî û kadr û pêşmerge û endam û alîgirên PDKÎ û bi giştî xelkê Kurdistanê kir, rû li lawên Kurdistanê kir û ragehand ku, em di cejna Newrozê de vê peyamê didin we, ku emê derfeta vê yekê bo we berhev bikin ku hûn bihên, û tevlî refên pêşmergên PDKÎ bin, bona destpêkirina jiyana bi serbilindî û bicîhêlana jiyana serşorî û paremayî.

Di beşeke din a rêûresmê de, sirûdeke netewî ji aliyê hunermend "Felek" ve hate pêşkêşkirin. Herwisa Sirûda "Cejne Cejne" ji aliyê Koma Muzîkê a PDKÎ ve hate pêşkêşkirin.
Di beşa din a rêûresmê de hunermendê pêşmerge Xulam Fatihî stranek bi navê "Şîrîn Behare" pêşkêşî pişikdaran kir.

Piştre agirê dujminsoj ê Newrozê ji aliyê Mistefa Hicrî û Gulê Îbrahîmî pêşmerga dêrîn a PDKÎ ve hate hilkirin. Beşa dawiyê ya rêûresmê taybet bû bi govend û dîlana Kurdî.





## Sergotar

## Vejiyan û Newroz



Kerîm Perwîzî



Salek ji jiyan û temen derbaz bû, û dîroka neteweyan, û bi taybetî neteweya Kurd jî, saleke pirr ji bûyer û ezmûn û kêşe û bi taybetî saleke pirr ji liv û tevger derbaz kir.
Hatina sala nû, û nûbûna salê, daxistina dosyiyeya sala kevn, bi wateya demê ye, hekî ne eva ku salek derba dibe, û bandore xwe li ser sala bê jî dike, di warê piratîkê de bi awayekî din dest pê dike.
Nûbûna salê, hekî em wekî bûyereke asayî û wekî pêvajoyeke herdemî ya hatin û çûyîna salan em lê binêrin, yan herwisa bi awayekî asayî bi ser me de derbaz bibe, manayeke taybetî nabexşe, û dibe derbazbûna xwezayî ya derketin û avabûna bi sedan milyon carî ya avabûna rojê!.
Lê bûyerên xwezayî û bûyerên bi hezran carî ducarîbûyî, wekî hilatina rojê, û roj avabûn, wekî derbazbûna erdê ji xala navgîn (Mu'tedil) ya payîzî û buharî, wê demê bi îde û xeyal û xwesteke taybetî ya mirovî, yan jî neteweyî, di wê demê de ye ku dîmenên xwezayî, wateyê dibixşin, û ji bûyerê ve dibin afirînerê bûyeran.

Nûbûna salê hekî di Kurdistanê de girê didin bi agirê newrozê, û agir nîşana germîbexşîn û ronahîdan û serîtewandina bi tarîtiyê dibin, di wê demê de ye ku Newroza Kurdistanê manaya nûbûna jiyanê dide, û wateya wê cardin avakirina hêvî û xweziyan e.
Lewra gellek bûyerên mezin ên dîrokî ên Kurd û kurdistanê di newrozê de hatine afirandin. Jiber ku newroz bûye remza serhildan û rabûna neteweyekê.
Sala 2716'an a Kurdî hekî wekî hemû salên din tenê di rewteke asayî de dest pê bikin, û bo neteweyek û girûpekê, bûyerên derdorê bi awayekî asayî derbaz bibin, herwisa bi awayekî asayî jî sala 2716'an a Kurdî bi dawî tê, û li ser hêla ducarîbûnê, salek bi ser de zêde dibe, lê hekî nûbûna salê, mizgîniya nûbûna jiyanê jî hebe, û bi taybetî mizgîniya nûbûna xebat û şoreşê digel de be, wê demê ye ku gel û neteweyek îrade kiriye ku di nav dilê hêma û remzên newroz û agirê newrozê û nûbûna salê, vejînê ava bike.

20 sal bi ser sala 1375 (1996)'an re derbaz dibe, ku wê demê şoreşgeran bi her sedemekê be, çiraya şoreşê kêmronahî (kiz) kirin, gelo piştî 20 salan ew tilism hatiye şikestin, û xebateke nû wê îsal dest pê bike? Eva mizgîniyek bû ku sekreterê giştî ê PDKÎ li peyama xwe ya newrozî de da gelê Kurd: Di sala nû de, vejiyan û xebateke nû dest pê bikin.

## Şandeke PDKÎ di rêûresma bi axêspartina Yaşar Kaya de beşdar bû

**Li gora nûçeya ku gihaye destên me, şandeke beşa Pêwendiyan a PDKÎ roja 12'ê Adara 2016'an di rêûresma bi axêspartina siyasetvanê naskirî yê Kurd Yaşar Kaya de beşdarî kir, û sersaxî da malbata navbirî.**



Şanda beşa Pêwendiyan a PDKÎ bi serperestiya Ebdulrezaq Muradazer di vê rêûresmê de beşdar bû, ku di bajarê Hewlêrê de bi rê ve çû.

Vê şandê peyama hevxemiya PDKÎ gehandin malbata birêz ya Yaşar Kaya siyasetvan û welatparêzê Bakura Kurdistanê.

## Rêûresma 70.emîn salvegera avakirina Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê bi rê ve çû

**Rêûresma 70.emîn salvegera avakirina Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê di binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ de bi rê ve çû.**



Li gora nûçeya ku gihaye malpera Kurdistanmedia: Roja Duşemiyê 24'ê Reşemeya 1394'an bi amadebûna endamên Yekîtiya Jinan, endamên rêberî, û pêşmerge û malbatên PDKÎ rêûresmeke bicoş bo salvegera avakirina Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê bi rê ve çû.

Destpêkê ew rêûresm bi xwendina sirûda "Ey Reqîb" û ragirtina bîstekê bêdengî bona hurmetgirtina ji riha pak ya şehîdan dest pê kir.

Piştre peyama Yekîtiya Jinan ji aliyê Fatime Osmanî sekretera vê yekîtiyê ve hate xwendin.
Peyama Deftera Siyasî a PDKÎ ji aliyê Hesen Şerefî cihgirê sekreterê giştî ê PDKÎ ve hate xwendin.
Di beşeke din ya rêûresmê de xelata salane ya Yekîtiya Jinan pêşkêşî "Kilisûm"xanim, wê jina xebatkar ya di nava refên PDKÎ de hate kirin.

Naweroka rêûresmê jî xwendina çendîn sirûd û stranan ji aliyê Koma Hunerî a PDKÎ, û xanima stranbêj "Şinyan" ve bû.
Di dawiya rêûresmê de kincên fulklur ên herêmên cur bi cur ên Kurdistana Rojhilat jî hatin nîşandayîn.
Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê wekî rêkxiraweke pîşeyî-siyasî 70 sal berî niha û çend mehan piştî Komara Kurdistanê di çarçoveya Komarê û PDKÎ de hate avakirin.

# Sekreterê giştî ê PDKÎ peyamek bi boneya hatina sala nû belav kir




## Mistefa Hicrî: Ciwanên xwedîhest û serkutkirî ên Rojhilata Kurdistanê! Di sala nû de tevlî refên pêşmergeyên Demokrat bin, bona destpêkirina jiyaneke serbilindane, û bi cih hêlana serşorî û paşvemayînê

**Bi boneya hatina sala nû ya Rojî rêzdar Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ peyamek rû li xelkê Kurdistanê belav kir ku eva jêr deqa vê peyamê ye:**

Hevwelatiyên têkoşer!
Amadebûyiyên rêzdar ên rêûresma îsal a newroza me!

Ji aliyê PDKÎ ve ez pîrozbahiyeke germ bi germahiya newrozê pêşkêşî we hemiyan, malbatên şehîdên riya rizgariya Kurdistanê ji destên zordariyê, girtiyên siyasî ên serbilind ku serê xwe di hemberî stem û êş û azarên rejîma Komara Îslamî de netewandin, û kadr û pêşmerge û endam û alîgirên PDKÎ, û we rêzdaran, û amadebûyiyên newroza îsal û hemû xelkê Kurdistanê dikim.

Xûşk û birayên rêzdar!
Digel bidawîhatina sala 1394'an a Rojî, saleke din bi ser temenê pirr ji taqîkarî a rejîmê re derbaz dibe, her wekî ku gellek zûtir me pêşbînî kiribû, di vê salê de deshilatbidestên Komara Îslamî piştî zêdetir ji dehikekê pêdagirî li ser mehandina Oranyomê di rastaya bidestveanîna armancên wan yên bilindfiriyane de, ku destpêregihîştina bi çeka navikî bû, û bi hederdana sedan milyard Dolarî ji dahata vî welatî û bi buhaya bê nanî û bê bêkarkirina xelkê, di encamê de li rûyê neçarî ve, serî bo şert û mercên Rojava tewandin û rêkevtinek bi wan re îmze kirin, ku encama wê hiloşandina hemû wan bernameyan bû ku di vê heyamê de bo vê meremê amade kiribûn. Ew yek jî bi armanca rizgarkirina rejîmê li jêr giraniya barê van gemaroyên aborî de bû, ku Rojava xistibû ser Îranê û koka aboriya welat qelandibû.

Di heman demê de berevajiyê çavnihêriyên hinek ji welatên Rojavayî, û çavdêr û hinek ji kirêgirtiyên rejîmê, hilgirtina dorpêçan, destên rejîmê pirr dike bona alîkarîkirina zêdetir bi girûp û hevpeymanên terorîst ên wê, bi armanca vegeşandina zêdetir a şer, tevdanîkarî û malwêranî di hemû cihekî bi taybetî di Rojhilata Navîn de, lê para xelkê Îranê hejarî û bêkarî û bêhêvîtî ye.

Digel vê yekê jî me ragehandibû ku vekirina rûyê rejîmê bi rûyê cîhana derve hevdem dibe digel tundûtîjî û girêdayîbûna zêdetir a rewşa siyasî a Îranê bo hemû azadîxwazên welat bi taybetî bo têkoşerên Kurd û neteweyên din ên Îranê.

Niha jî hûn bixwe şahidê rastiyên piştî "bercam"ê ne, di navxwe ya welat li derheq deskewta xelkê di navxwe û li derveyî welat di warê berdewambûna rejîmê li ser alîkariyên xwe ji bo kuştarê û malwêraniya bi sedan hezar kesî ji xelkê welatên Sûriye, Îraq û Lubnan û Yemen û ... hwd.

Bûyereke din ya balkêş birêvebirina şanoya hilbijartinê a Meclisa Şêvra Îslamî û Meclisa Şarezayan a Rêberî di destpêka Reşemeya sala 1394'an de bû, ku rejîmê bo careke din piştî hat û hawareke zêde û piropagendeyeke berfireh bona xapandina xelkê navxwe û derve, hejmareke din ji mohreyên xwe di van du ciyan de danî, Meclisek ku tenê bi berçav heye, û bê deshilat e, û heta li gora gotina deshilatdarên rejîmê bi xwe jî tu bandorek li ser darêtin û çavdêriya siyasetê li ser welat de nine, û Meclisa Şarezayan a Rêberî jî ku wekî hemû carê serşor in, û çav ji devê weliyê feqîh in, û tu deshilateke wan tuneye.

Ev ceribandinên han û sozên deshilatdarên rejîmê, reklam û piropagendeya berfireh û rêkxistî ji aliyê hinek mohreyên eşkere û nepenî ên Komara Îslamî ya Îranê, bona gêjkirina xelkê û nîşandana rûçikek rizgarîxwazî ji kesatiyên herî tawanbar ên vê sîstema parvemayî ên weke Refsencanî, vê yekê dibêje me ku hêvîdarbûn bi bidestxistina mefên herî despêkî ên azadiyê di bin deshilata vê rejîmê de, xincî pêdana derfeta zêdetir bi kesatî û mohreyên girîng û gir ên rejîmê bona dirêjîpêdana deshilata serberdayî û cînayetkarana, tu tiştek din nine.

Ceribandinên 40 salên derbazbûyî hemû belgeyên haşahilnegir in ku, bi hebûn û mana vê rejîmê, xewn û hêviyên gelên Îranê û li serweyî hemûyan netewa Kurd nahêne cî, meger wî çaxî ku xelk yekgirtî be û yekbûna xwe bike hêzeke xwedî bandor bo standina mafên xwe.

Peyama me di cejna Newrozê de eva ye ku deng û şiyana xwe li çiya û bajaran de rêz bikin bona pêkanîna hêzeke qahîm û çarenivîssaz, da ku ji nû ve jiyanekê bo me binivîsin, jiyanek dûr ji serî tewandin û bêmafiyê. Hizba Demokrat vê şiyanê di netewa Kurd li Kurdistana Rojhilat de dibîne û piraniya bûyerên qewimî di çend salên derbazbûyî de, şahidê nîşandana vê hêz û şiyanê ne, lewra em li ser vê baweriyê ne ku em hemû bi hev re dikarin newroz û sala nû ya 1395'an a Rojî bikin saleke cuda ji salên derbazbûyî, û bi peyam û peymanê hêvîder, bona jinûve jiyana bi serbilindî.

Xortên xwedî hest û zulmlêkirî ên Rojhilat!
Em di roja Newrozê de vê peyamê didin we, û dixwazin derfeta vê yekê bo we pêk bînin, ku di sala nû de tevlî refên Pêşmergên Demokrat bin bona jinûve destpêkirina jiyana bi serbilindî û bicih hêlana tewahiya serşorî û paremanekê.
Jin û keçên hişyar û mafxwaz ên welatê me weke berê di xwendingehan de, di cihê kar û li her derekî ku dimînin û dikarin, bi pêkanîna korr û civînên eşkere û nepenî, refên xwe rêk bixin, û hemû bi hev re berbine canê kirêgirtiyên rejîmê û banga mafxwaziya xwe bigihînin guhê cîhanê.

Rewşenbîr, kedkar, bazarî û hemû tex û çînên civakê hewce ye ku yekdeng li dijî zewtkirina mafên xwe hewar bikin û tewawkerê xebata azadîxwaziya hevdû û xebata çiya bin.

Em we xatircem dikin ku tundûtujiya rejîmê li dijî azadîxwazan, ne tenê nîşaneya hêz û şiyanê nîne, belkî nîşaneya ew qasê tirs û nîgeraniya ji xelkê ye, lewra xebata we ya yekgirtî morala rejîmê cardin kêmtir û bêdeshilattir dike. Bona rizgarî û serbestiyê, xincî vê rêyê, tu rêyeke din li pêşberî me nine û, ezmûna xebata Kurd li parên din ên Kurdistanê jî her vê rêyê nîşan me didin.

**Bi hêviya despêka saleke nû bona xebateke nû û deskewtên nû Agirê we yê newrozê dujminsoj be, û xebata we bihêz, û cejna we pîroz be**

# Çend wêneyek ji rêûresma pêşwazîkirina ji newroza sala 2016 'an (2716 'an a Kurdî)

















# Daxûyaniya Komîteya Navendî ya Hizba Demokrata Kurdistana Îranê derheq bidawîhatina 12.mîn pilînoma vê partiyê



**Hemwelatiyên rêzdar! Endam û alîgirên Hizba Demokrat!**

Roja Duşemî berwarê 12'ê Adara 2016'an ya Zayînî,(22.12.1394) pilînoma 12'ê ya Hizba Demokrata Kurdistana Îranê bi pişikdariya tewahiya endamên rêberiya Hizbê li Kurdistanê û herweha pişikdariya nûnerê Komîteya Karûbarê Hizbê li derveyî welat, bi ragirtina deqeyekê bêdengî bona rêzgirtin ji rih û yad û bîra şehîdên hizb û gel dest bi karên xwe kir.

Di despêka pilînomê de, destûr kara civînê ji aliyê birêz Sekreterê Giştî yê Partiyê ve ket ber bas û piştî pejirandinê, Sekreterê Giştî rapora siyasî li ser guherînkariyên herî dawiyê ên herêm û Îranê xist ber bas û, piştre pişikdarên pilînomê nêrînên xwe li ser rapora navbirî xistin ber bas, û piştî dîtingehên pişikdaran, rapora siyasî hate pejirandin.

Di rapora siyasî ya Sekreterê giştî de, despêkê amaje bi rewşa aloz û pir kêşeya herêma Rojhilata Navîn hatibû kirin, bi taybetî di çend heyvên derbazbûyî de, ku kêşe û kirîz kûrtir bûne û dijatiya berjewendiyan û berfirehbûna kêşeyên serekî ên herêmê, sedema sereke ya çaresernebûna wan alozî û kêşeyan in. Di Rojhilata Navîn de ku netewe û ol û kulturên cuda bi hev re dijîn, bi sedema hebûna bingeha dîrokî ya zulm û zordariyê û herweha destêverdanên welatên xwedî berjewendî û astengên aborî ên cîhanî û herêmî, niha jî, rêçareke baş bona çareserkirina wan kêşe û aloziyan nehatiye berçavgirtin, lewra em dibînin ku roj bi roj kêşe û arîşe kûrtir dibin, û xwîna xelkê deverê di pêxema wan dijatiyan û berjwendiyê dijî hevdû, zêdetir tên rêjandin.

Di çend heyvên derbazbûyî de kêşe û alozî li Sûriye û Yemen û Îraqê û cihên din berdewam bûne. Daketina Rûsiyê bi awayê kiryarî û leşkirî, hem balansa hêz li Sûriyê bo alyê Beşar Esed de girantir kir, û hem jî rewşa şer û pevçûnan aloztir kir. Di şerê Sûriyê de serbarê vê ku agirbestek despêkî hatiye ragehandin, lê bi qasekî xwedî berjewendî û pişikdarên şer, aloz û nateba û çend alî bûne ku, nahê çavnihêrî kirin ku bi aliyê kêm ve di kurtmideh de, girjî û alozî bên çareserkirin.

Rewşa şerê li dijî rêkxistina DAÎŞ'ê jî serbarê vê ku di heyama derbazbûyî de, di çend waran de pêşkevtin bi xwe ve dîtin, û DAÎŞ hatiye lawazkirin û çavkaniyên wê yê darayî kêm bûne, lê wisa dixûye ku ew aliyên ku ji bihêzbûna DAÎŞ'ê qazancê dikin, û bitaybetî Komara Îslamî ku bi hinceta şerê DAÎŞ'ê destêverdanên xwe zêdetir kirine û hewla guherîna demografiyaya herêmên Erebên Sunne dide, hez nake ku DAÎŞ bilez lawaz be, û ji nav here.

Di beşeke din a rapora sekreterê giştî de bas ji rêkevtinnameya Komara Îslamiya Îranê û welatên Rojavayî hate kirin, ku bi lihevkirina "Bercam"ê hatiye naskirin, û tê de hatibû ku herçend ku Komara Îslamiya Îranê wisa nîşan dida û bi tabetî dewleta Rûhanî diruşm dida ku bi rêkevtina di warê navikî de, hemû kêşeyên aborî çareser dibin, lê heya niha jî rêkevtina Komara Îslamiya Îranê û Rojava di berjewendiya xelkê de nebûye, û tu vegeşînek di warê jiyana xelkê a aborî de nahê dîtin. Herçend hêla gellek zû ye ku bi tewahî bandora vê rêkevtinê eşkere bibe, lê pirseke bingehîn ku nabe bihê jibîrkirin, ew e ku kêşeyên aborî ên Îranê berî pirsa navikî jî her hebûn, û reh û rîşeya vê kirîzê bo şêwaza birêveberiya rejîmê û gendelî û talanên cihê heyrîmanê ên berpirsyarên rejîmê û dezgeha deshilatdariyê vedigere.

Di beşeke din a raporê de bas ji rewşa Kurd di hemû beşan de hatibû kirin, û di her yek ji wan beşan de, hem "pêşveçûn" û hem jî "kêşe û lawazî" hebûne.

Di beşa Kurdistana Rojhilat de rapora Komîsyona Teşkîlatê kete ber bas, û bi taybetî rewşa Kurdistana Rojhilat di warê siyasî û aborî û civakî de hate baskirin, û dawî bûyer ku bas ji hilbijartina Meclisa Şêvra Îslamî û a Xibrigana Rêberî di wan dawiyane de bû, hate nirxandin, û



tê de bas ji helwesta xelkê û amarsaziyên rejîmê hate kirin, û pilînomê tevî piştrastkirina cardin a siyaseta tehrîma bi nav hilbijartinan, îşare bi beşdariya lawaz a xelkê serbarê hemû pîlanên rejîmê kir, û spasiya hemû wan kes û aliyan kir, ku di ber b pêşvebirina siyaseta tehrîma şanoya hilbijartinê de beşdar bûn.

Di mijara Kurdistana Sûriyê de, qala vê yekê hatibû kirin, ku tevî şerê xweragirane ê Kurd di hemberî terorîstan de, lê ew parvebûna Kurd bi ser du eniyên cuda de, wekî xaleke lawaz tê hesibandin, û her bi vê sedemê jî em dibînin ku tu aliyekî xwedî deshilat li şerê Sûriyê de qewleke rohn nedaye Kurdan, ku piştî aştiyê wê çi ji Kurdan re bê kirin.

Di başa Kurdistana Tirkiyê de wê raporê bas ji mixabiniya xwe derheq çêbûna şer di vê beşê de kir, ku piştî çend salan ku bas ji aştî û pirsa çareseriyê li Kurdistana Bakur hate kirin, herçend ku mafên neteweyî bi zelalî nehatine baskirin, lê hinek pêngavên baş hatin hilgirtin, ku Kurd di hemû biyavî de vedigeşiya, û diçû pêş, heya vê ciyê ku bo yekem car di dîroka Tirkiyê de, wekî partiyeke siyasî bû xwediyê 80 kursiyên parlementoyê, lê bi hatina şerê van dawiyane di nava bajaran de, hemû ew deskevt û pêşkevtin hêdî hêdî mijûl e ku ji dest derdikevin. Pilînom hêvîdar bû ku her du aliyên PKK û dewlet carek din şer bidawî bînin, û vegerin ser maseya gotûbêjê, lê gotûbêj bona çareseriya yekcarî ya pirsa neteweyî.

Di beşa Kurdistana Başûr de raporê îşare bi hemû kirîzên Kurdan di vê beşê de kiribû, û metirsiya destêwerdana roj bi roj zêdetir ya dijminên Kurd û li serveyî hemiyan, Komara Îslamiya Îranê xistibû ber bas, û herwisa hêvîdar bû ku hêz û aliyên siyasî di vê beşê de bi berçavgirtina hemû metirsiyan, û bi mifahwergirtina ji hemû derfetan di vê rewşa hestiyar de, pêngavên hevaheng û hevbeş bo pêşvebirina doza neteweyî û gehandina vê beşê ji Kurdistanê ber bi peravên ewlehiyê hilgirin.

Di beşeke din ya basên pilînomê de, bernameya karê hizbê bo sala bê, xistin ber bas, û tevî nirxandin û baskirina ji karên sala borî û eger û îhtimal û îmkanên bo sala bê, pilînomê biryara pêwîst bo kar û bernameyên hizbê derkirin.

Beşeke din ya karê pilînomê baskirin ji kongireya bê ya PDKÎ bû, ku tê de tevî biryardana li ser girtina kongireyê li gora pêrewa navxwe ya hizbê, bas ji kêmasiyên hizbê ên pêşîn hate kirin, û biryar li ser pêkanîna heyeteke taybet bo pêdeçûna bi ser pêkhate û sîstema karê hizbî hate dan.

Pilînoma 12'ê ya Komîteya Nawendî piştî du rojan karê berdewam û nirxandin û baskirin li ser hemû erk û destûrên karê diyarîkirî, roja Yekşemiyê 23'ê Reşemeya 1394'an demjimêr 7'ê êvarî dawî bi karên xwe anî.

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**
**24.12.1394**
**14.03.2016**

## Nerîna Lîderan



Moşe Yaalon: **“Yekparçebûna Sûriyê xeyal e”.**



Mîr Firat: **“Dewleta Tirkiyê pêvajoya çareseriyê bi dawî anî!”.**



Zerîf: **“Derketina hêzên Rûsiyê ji Sûriyê nîşaneke pozetîv e”.**



Mekarim Şîrazî: **“Rêûresma kule çarşemiyê, rêûresma nezanan e”.**

## Li Rojavaya Kurdistanê Federalîzm hate pejirandin

**Roja pêncşemî 17’ê Adarê Komîteya Amadekar a Kongreya Damezrêner a Sîstema Rêveberiya Pêşerojê ya Rojavaya Kurdistanê, li bajarokê Rimêlan ê girêdayî navçeya Dêrikê civiya, û berdewamî bi gotûbêj û nîqaşên li ser sîstema federasyona Rojavaya Kurdistanê da.**




Li gor zanyariyan, di civîna duh de, piştî gotûbêjên berfireh li ser reşnivîsa Sîstema Nû ya Rojavaya Kurdistanê, sîstema federasyonê pesend kirin. Komîteya Amadekar roja çarşemê 16’ê Adarê yekemîn civîna xwe li ser heman mijarê li Rimêlanê li dar xistibû.

Di kongreya Rimêlanê de derdora 200 nûner beşdar bûn, ku ji nûnerên Kurd, Ereb, Aşûrî, Ermenî, û Tirkmenên Rojavaya Kurdistanê pêk dihatin. Li gorî agahiyan, nûnerên herêmên Şehba, Minbic, Heleb, kantonên Rojavaya Kurdistanê, Girê Spî û nûnerên YPG’ê û YPJ’ê di civînê de beşdar bûne.

## Ban Kî Mûn: Hizbullaha Lubnanê biryarnameya 1701’an binpê kiriye

**Sekreterê Giştî ê NY ragehand ku Hizbullaha Lubnanê çekên xwe ji bo ewlehiya welat bi kar nabe.**



Li gora nûçegihaniyan Ban Kî Mûn ragehand ku Hizbullah hêzên xwe li dijî biryarnameya 1701 ya agirbesta di navbera izbullaha Lubnan û ÎsraÎlê bi kar dibe. Li gora gotina navbirî çekên Hizbullahê ew cura ku ew îdia dikin, ji bo cihgirkirina ewlehiyê di Lubnanê di nîne, belkû serdestiya yasaya Lubnanê binpê dike, û gefek e li dijî deshilatdarî û emniyeta Lubnanê.

Hêjayî basê ye ku Kemal Xerazî jî ku niha serokê Konseya stratejîk a pêwendiyên derve a Komara Îslamiya Îranê ye, di vê derheqê de ragehandiye ku lawazkirina Hizbullahê xizmetê bi berjewendsiyên Îsraîlê dike.

## Serokê Parlementoya YE: Pirsa Kurd bi riya leşkerî nahê çareserkirin

**Serokê Parlementoya Yekîtiya Ewropayê (YE) “Martîn Schulz” derbarê civîna YE ligel Tirkiyê ya li Bruksselê de, bangî Tirkiye kir ku pirsa Kurdan li Bakura Kurdistanê bi rêyên aştiyane çareser bike.**



Serokê Parlementoya Yekîtiya Ewropayê got: “Divê Enqere fêm bike ku ji bo pirsa Kurdan çareseriyeke leşkerî tine”.

Serokê Parlementoya YE herwiha bang li Tirkiyê kir ku azadiya ragihandinê li ber çavan bigire û diyar kir ku di hinek pirsan de jî YE dikare gavan di berjewendiya Tirkiyê de bavêje, bo mînak di vekirina dosyeyên nû yên danûstandinên endametiya Tirkiyê di YE de, an jî hêsankirina vîzeyê ji bo welatiyê Tirkiyê.

Tirkiye seba binpêkirina mafên mirovan bi tayabetî di van çend mehên dawiyê de berdewam ji aliyê rêkxirawên parzerê mafên mirovan û YE û NY ve tê rexnekirin, lê di piratîkê de, çi yek ji wan aliyan pêngavên cidî bona neçarkirina Tirkiyê bi sekinandina şer hilnegirtine.

Xonçe Feyzullahî :

# “Her kesekî tenê bo carekê jî Dr. Qasimloyê nemir dîtibe, bê guman terora bi necamêrî (nemirovane) ya wî, roja herî nexweş a dirêjahiya jiyana wî/wê, bibe”.



H: Arif Vêlzî

Wefadariya bi rêbaza şehîdan, rêvîngiya rê û rêbaza pirr ji serweriya Hizba Demokrat a Kurdistanêbûn, dilekî mezin, moralek bilind û cangorîtiyê dixwaze, ev dil û moral û cangorîtiya ku îro rojê û piştî derbazbûna nêzîk bi çar dehikan, em di nava şêre jinên Demokrat de bi zelalî dibînin.

Em dibînin serbarê ve ku piraniya temenê xwe, lavîniya xwe, û hemû jiyana xwe di pêxema rêbaza pirr ji serweriya Hizba Demokrat de gorî kirine, lê hêj xincî sorbûna xwe li ser berdewamiya di vê rêbazê de, hêvî û daxwaza vê yekê ji kes û karên xwe dikin ku, heya gehiştina bi armancên şehîdan, li ser xebat û tekoşîna xwe li jêr siya Hizba Demoktata Kurdistanê de berdewam bin.

Xonçe Feyzullahî jî yek ji wan şêre jina ye ku, pitir ji 37 sal e ku jiyana xwe di pêxema xizmet bi rêbaza şehîdan, wate refên Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê de terxan kiriye, û hêvîdar e ku wê di pêşerojeke nêzîk de bigehin armancên şehîdan û Hizba Demokrat wê biser keve.

Xonçe Feyzullahî keça Kerîm, berwarê 20’ê heyva Gelawêj a sala 1342’an (1963) li gundê “Ehmedava” ya ser bi bajarê Banê hatiye dinê.

Xonçe Feyzullahî derheq bi nasyariya xwe tevî PDKÎ weka dibêje: “Dema Xumêynî rêberê Komara Îslamî fermana “Cîhad”ê li ser gelê Kurd da, û şerê “Sê mange” piraniya deverên Kurdistanê xiste bin bandora xwe de, min bo cara yekemîn Hizba Demokrata Kurdistanê nas kir.

Wî çaxî Hizba Demokrat bû ku karî li hemberî êrîşên hovane ên çekdar û kirêgirtiyên Komara îslamî de berxwe bide, û berevaniyê ji hebûna netewa xwe bike”.

Xonçe Feyzullahî çavaniya jiyana xwe ya hevpar jî weha ji Agiriyê re bas dike: “Hevdem digel despêkirina şerê “Sê mange”, min hevjînê xwe Rehman naskirî bi “Rehmane Kurde” nas kir û piştî midehek kêm me biryara avakirina jiyana hevpar da, wate hevdem digel destpêkirina şerê “Sê mange” min hem PDKÎ nas kir, û hem jî tevî Rehman jiyana hevpar ava kir û berhema jiyana me jî 5 zarok in bi navên Şino, Şadî , Şehîn, Aram û Akam”.

Xonçe herweha piştî derbazkirina piraniya temenê xwe di nava jiyana pir ji zehmetî ya şoreşvaniyê de, çavnihêriya xwe ji Hizba Demokrat û hevjînê xwe weha tîne ziman: “Çavnihêriya min ji Hizba Demokrat û havjînê min ev e ku, dirêjîderê rêbaza şehîdan bin heya wî çaxî ku digîjin hêvî û armancên şehîdan”.

Xonçe Feyzullahî roja herî xweş a jiyana xwe weha tîne ziman: “Roja herî xweş a jiyana min vedigere bi wê salê ku, rêberê navdarê gelê me, şehîd Qasimloyê nemir, li Fêrgeha Siyasî Nizamî li Qendîlê, civînek bo jinan pêk anî, wê rojê min bo cara yekemîn Dr. Qasimlo dît, ev çavpêketin û guhdarîkirina gotinên wî şehîdê mezin, roja herî xweş û bîreweriya herî xweş a hemû jiyana min e”.

Herweha di hember de Xonçe roje herî nexwş a jiyana xwe weha bas dike: “Bi baweriya min ne tenê bo min, belkî bo her kesekî ku tenê bo carekê û bo çend deqeyekan Dr. Qasimloyê nemir dîtibe, anku mezinatî û mêrxasî û siyasetvaniya wî gudarî kiribe, bê guma terora bi necamêrî ya wî, roja herî nexweş û bîreweriya herî nexweş a dirêjahiya jiyana wî/wê, wê bibe”.

Xonçe Feyzullahî rû li jin û keç û dayîkên Kurdistanaê dike, û bi vê gotinê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tevî rojnameya Agirî tîne: “Gotina min ya rû li jinan ev e ku, bixebitin di pêxema wekhevî û gehiştina bi armancên netewî û demokrasiya bo gelê Kurd, û bi giştî rêbaza Hizba Demokrata Kurdistana Îranê bigirne pêşiya xwe”.







## Ehmed Şehîd di konferansa kêmaniyên etnîkî û mesebî ên Îranê de beşdarî kir

**Rewşa binpêkirina mafên mirovan di van herêman de ku kêmaniyên mesebî û etnîkî di Îranê de, tê de dijîn, bi beşdariya reporterê taybetî yê NY kete ber bas.**

Roja Înê 11'ê Adarê Komeleya Mafên Mirovan a Kurdistana Îranê-Jinêv konferansek li derheq girûpên etnîkî û mesebî ên akinciyê Îranê bi taybetî Kurd û Behayiyan bi rê ve bir.

Konferansa salane ya vê nawenda berevankarê mafên mirovan, bi beşdariya reporterê taybetî ê NY di warê karûbarên Îranê, û di derveyî civîna 31. emîn a Şêvra Mafên Mirovan li Jinêvê bi rê ve çû.

Di destpêka vê civînê de, nûnerê Komeleya Mafên Mirovan a Kurdistana Îranê tevî bixêrhatinkirina mêhvanan, çend gotinek li ser serkutên sîstematîk û dijîmirovî ên hikûmeta Îslamiya Îranê li dijî neteweyên Îranê bi taybetî Kurdan pêşkêş kir.
Teymûr Elyasî nûnerê Komeleya Mafên Mirovan a Kurdistana Îranê ragehand: "Yasaya bingehîn a rejîma Îranê di maddeyên 15, 4, 1, û 115 de, bi tewahî li dijî neteweyên Îranê ye, û Kurd, Belûç, Tirk, Ereb û …hwd ji hemû mafên xwe yên bingehîn, ji wan beşdariya di deshilata siyasî û xwendina bi zimanê zikmakî de hatine bêparkirin.

Dawî rewş û amara kolberan û teqekirina çekdarên rejîma Îranê li vê texa civaka Kurdistanê, û herwisa îdama girtiyên Kurd ku amara herî zêde ya bidarvekirinan bi xwe ve girtiye, çend tewerên din ên basên nûnerê Komeleya Mafên Mirovan a Kurdistana Îranê bûn.

Li gora dawî rapora Ehmed Şehîd di sala borî a Zayînî de, aliyê kêm 966 hevwelatî di girtîgehên Komara Îslamî de hatine bidarvekirin.

Di doma rûniştina Jinêvê de reporterê taybetî ê NY çend gotinek kirin, û ragehand: "Yasa û reftarên hikûmeta Îranê li dijî tewahiya mafên kêmaniyên neteweyî û mesebî ye".

Wî li derheq gelê Kurd de got: "Çalakên biyavê ziman û çandê di Kurdistanê de têne destbiserkirin, û piştre jî bi tometa pêngavhilgirtina li dijî ewlehiya neteweyî têne girtin, û heta têne îdamkirin jî".

Navbirî teqekirina li kolberan û kuştina wan, heta berevajiyê wan yasayan zanî, ku yasayên Komara Îslamî bi xwe ne jî.




Piştre Xatû Ciraldîn Sawarî bas ji tewerên siyasî û hiqûqî ên pergala federalîzmê kir, û ew şêwaza deshilatdariyê wekî şêwaza herî baş bo Îrana çend neteweyî hesiband.

Cihgirê sekreterê Partiya Sosyalîst a Swîsê di doma vê civînê de, pêdagirî li ser hewcehiya reforma berfireh di sîstema fêrkarî û siyasî û aborî a Îranê de kir.

Berdevkê Komeleya Navneteweyî a Behayiyan di Jinêvê de jî beşdarekî din ê vê konferansê bû, ku baseke têr û tejî li ser rewşa kêmaniyên mesebî kir.

Diyan Elayî basê vê yekê kir, ku Behayî di biyavê fêrkarî û çalakiyên pêwendîdar bi ayînê xwe de, berbirûyê kêşe û astengiyên micid dibin.

Di vê konferansê de ku rojekê dom kir, nûnerê hertimî yê welatên wekî Kanada, Swîs, Norwêj, Mêkzîk, Amerîka, Şîlî, Kolombiya, Swîd û … hwd li Civata Mafên Mirovan a NY beşdar bûn.

Komeleya Mafên Mirovan a Kurdistana Îranê –Jinêv ku di sala 2006'an de li Swîsê hatiye avakirin, xwe wekî nûnerê civaka medenî a Kurdistanê dide nasandin, ku di warê siyasî de, xwe bê alî dihesibîne, û pêwendiyeke tund û bihêz digel organên ser bi NY û organên navneteweyî ên mafên mirovan heye.

## Çar gundên Kurdistana Îranê wekî ogirên pirtûkê hatin nasîn

**Çalakiya çandî ya pêwendîdar bi pirtûk û pirtûkxwendinê, gundeke derdora bajarê Mehabadê kire gundê hogirê pirtûkxwendinê di tewahiya Îranê de.**

Li gora nûçeyên ku hatine belavkirin, gundê Daşxane ser bi bajarê Mehabadê ji aliyê dawerên duyemîn festîvala gundên hogirê pirtûkxwendinê ve wekî gundê hilbijartî, hate destnîşankirin.

Di vê festîvalê de 10 gund wekî gundê herî baş hatin hilbijartin, û 10 gundên din jî lewha rêzgirtinê bi wna hate dayîn.

Encamdana çalakiyên çandî ên taybetî, beşdariya xelkê, û hebûna endamên çalak ji mercên hilbijartina gundê hogirê pirtûkan hatiye ragehandin.

Pirtûkxaneya "Zanist" li gundê



Daşxane bi hebûna 4 hezar bergênm pirtûkan, 132 endamên wê hene, û bi vê serkevtinê jî karî alavên hewce bi buhaya 40 milyon Tûmenî werbigre. Gundê Rimîn li Sîstanû Belûçistanê de jî wekî yekem gund div î warî de xelat wergirt.

Sala borî jî, di yekemîn gera vê festival de, her du gundên "Îngîce" a Merîwanê û gundê "Gog tepe" a ser bi Mehabadê wekî hogirên pirtûkê hatibûn destnîşankirin.

## Yaşar Kaya di temenê 78 saliyê de koça dawiyê kir

**Siyasetmedarê Bakura Kurdistanê Yaşar Kaya, ku ev çend roj bûn li Hewlêrê bû, jiyana xwe ji dest da.**

Yaşar Kaya sala 1938'ê li bajarê Qersê yê Bakurê Kurdistanê ji dayîk bibû. Kaya sala 1959'an dema di beşa aborî ya Zanîngeha Stenbolê de dixwend, bi 48 kesan re hate girtin, lê piştî sal û nîvekê hate berdan. Wî sala 1965 dersa xwe xilas kir.

Yaşar Kaya, sala 1968'an li ser heman dosyayê ji bo bajarê Konyayê hate sirgûnkirin, lê di heman salê de dîsa vegeriya Stenbolê. Sala 1991'ê bû Serokê Giştî yê Partiya Demokrasiyê (DEP). DEP sala 1994'ê ji aliyê dewletê ve hat qedexekirin û hilweşandin. Ji ber doz û xebata siyasî, neçar ma biçe Ewropayê û li wir Parlamentoya Kurdistanê li Derveyî Welat (PKDW) ava kir.

Yaşar Kaya, ji sala 1994'ê heta sala 2014'ê li bajarê Frankfurtê yê Almanyayê ma, paşê derbasî Hewlêrê bû. 17'ê



Nîsana 2014'ê jî vegeriya Tirkiyê.
Navbirî piştre vegeriya Hewlêrê, û her li nexweşxaneyeke Hewlêrê de jî koça dawiyê kir.

Komîsyona Ragehandinê ya PDKÎ sersaxiyê dibêje malbata serbilind ya Yaşar Kaya û bi taybetî civaka hunerî, siyasî ya Kurdistana Bakur.

## Kurê Yaşar Kaya: Bavê min dixwast Bakur bibe herêmek federal!

**Kurê siyasetmedarê kurd Yaşar Kaya, Dara Kaya gotinên dawî yên bavê xwe ji Rûdawê re vegot û ragihand, Yaşar Kaya dixwest şer li Bakurê Kurdistan nemîne, û Bakurê Kurdistanê bibe herêmek federal li nav Tirkiyê de.**

Derheqê wesiyet û gotinên dawî yên Yaşa Kaya de, kurê wî Dara Kaya got, bavê min dixwest li Bakurê Kurdistanê şer nemîne û hevdîtinên aştiyê di navbera dewlet û kurdan de dîsan dest pê bikin.

Dara Kaya herwiha anî ziman ku Yaşa Kaya dixwest Bakurê Kurdistanê bibe herêmek federal…

Li ser wesiyeta Yaşar Kaya derheqê defnkirina termê wî de jî, Dara Kaya got, me bi rayedarên Tirkiyê re li ser vê mijarê axivî, ji me re gotin hûn li kuderê dixwazin veşêrin. Lê dayîka min, dost û hevalên me biryar dan li Başûrê Kurdistanê were veşartin. Çimkî bavê min pir ji Başûr hez dikir. Eger me term bibira Tirkiyê me nedikarî Ala Kurdistanê lê bibêçin, lê em li vir dikarin…

## Çaremîn pirtûk li ser fîlm û sînemaya Behmen Qubadî hate belavkirin

**Çarem pirtûk bi navê "Behmen Qubadî û sînema" li ser fîlm û sînemaya Behmen Qubadî ji aliyê dezgeha çap a "Evêsta" ve hate belavkirin.**



Li gora nûçeya ku gihaye nûçegihaniya Kurdpa, Çarem pirtûk bi navê Behmen Qubadî û sînema li ser fîlm û sînemaya Behmen Qubadî ji aliyê dezgeha çap a "Evêsta" ve bi her du zimanên Kurdî û Tirkî hate çap û belavkirin, ku ji aliyê Nîhad Nûyan ve hatiye nivîsandin.

Ew pirtûk herwisa wê bi zimanê Almanî jî bê wergerandin. Her di vê derheqê de pêştir jî sl pirtûk bi zimanê Tirkî li Tirkiyê hatibûn çap û belavkirin.

Behmen Qubadî sînemakarê Kurd di sala 1969'an de li bajarê bane de ji dayîk bûye, û di zanîngeha Tehranê de di beşa sînemayê de ders xwendiye.

Qubadî piştî çêkirina fîlma sînemayî a "demek ji bo mestiya hespan", karî navdar bibe, û heya niha di çendîn festîvalên navdewletî ên fîlman de kariye xelatan bi dest bixe.

## Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Dua dengê baweriyê ye.
**Honre**

Ma hûn dizanin ji bo çi li hemberî du guhên me zimanekî me heye? Ji bo ku em pirr guhdarî bikin û hindikî bipeyivin.
**Diyojen**

Dinya dikek e, piştî ku herkes rola xwe li ser bileyize, ew ê jî here.
**Winschooten**

Dinya saloneke tiyatroyê ye, yên ku perên wan hebe, ew ê li cihên baş rûnên.
**S. Maugham**

Yê ku bi tenê dijminekî wî hebe, li her derê li wî rast tê.
**Emerson**

Ji berdêla ku wê dijminê min bibe dost, dostê min bibe dijmin çêtir e.
**Bias**

Dijminê dijminê min, dostê min e.
**Anonim**

Mirov dijminê xwe yê herî mezin e.
**Cicero**

Dijminê we yê herî mezin di nava we de ye.
**Hz. Mehemmed**

Mirovên baş qet bêî dijmin nabin.
**Alessandro Manzoni**

# Zimanê Kurdî

Unîteya 7. Lîstik û Xeberoşk



## Beşa 6. Dema axaftinê



*Hevalno ka dê kî ji we vê zûgotinokê bibêje.*

Beran borî di malê de
Min beran xwar
Beraz ma di malê de



## Beşa 7. Dema axaftinê

Çêçik û kûçik di malê de
Çêçik firiya, min çêçik xwar
Kûçik firiya min çêçik xwar



## Beşa 8. Dema axaftinê

*Hûn jî zûgotinokeke nû hîn bibin û ji hevalên xwe re bibêjin.*

..................................................................

106

# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

**1. Kaxez**
**- Dunya hemî diçitê, kefeka pûşî naçitê.**
**- Li berî bidey çi lê nahêt, li avê bidey dişikêt.**

**2. Teşî**
**- Serî gupal e, nîvekê bêder e, binî tîruk e.**
**- Tiştê mino, direqisit, ne dixot ne vedixot.**
**- Serstûrê bin zirav.**

**3. Derzîk/şûjin**
**- Çav tune lê dimeşe, lig tune lê şop dihêle.**
**- Ser kunê bin tîj.**
**- Şervan dixemlîne, hemû ji wî dirazîne, lê bi xwe rût û tazîn e.**
**- Dêlka harî, çu koneka tarî, îna derî hestiyê binê pê marî.**

**4. Kefçik**
**- Ker bi bar ve çu di şkeftê ve.**
**- Ew diçe hundir, gewde dimîne li derve li dûr.**
**- Deve bi bar çû zinar?**

**5. Gura rîsî û şîşik**
**- Pênc bira qesrekê avadiken.**
**- Sêheb birayên hevin, her roj çavên hevdû derdixînin?**

**6. Girkêt hevîrî**
**- Herru sipêdê dayka te teşteka hêka dikit.**

**7. Tirektor**
**- Cot dike ne ga ye, xwarinê dixwe, birçî nabe.**

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



# Agirî

- Rojnameya “Agirî” di van malperên jêrên de bixwînin:
- www.Kurdistanmedia.com
- www.Agirimedia.org
- rojnamaagiri@gmail.com
- www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (274)


## Hilkirina agirê newrozê ji aliyê birêz Mistefa Hicrî û Gulê Îbrahîmî pêşmerga dêrîn a PDKÎ ve

